


## Perwerdeya bi zimanê dayîkê

»»» R: 3

*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (261) 06-09-2015 Buha (500) Tûmen*



## Wezîra Swêdê li ser Alan giriya

**Wezîra Derve ya Swêdê "Margot Wallstom" di bernameyekE televîzyonî de behsa Alan Kurdî kir û li ser wî zarokê kurd giriya.**

Herwiha got, dilê wezîrên welatên erebî ji kevran hişktir e. Margot Wallstom ji televîzyoneke welatê xwe re li ser rewşa penaberan, ku pêleke mezin ji wan berê xwe dide Ewropayê, dema ku behsa Alan Kurdî kir, nema xwe girt û hêsir ji çavê wê hatin xwar. Di dema ku Margot Wallstom

»»» R: 2

# Îran û mezaxtina bi milyardan dolarî bo terorîstan

**Komara Îslamî di her salekê de, bi milyardan dolarî dide terorîstên alîgirê xwe li welatên Lubnan, Yemen, Sûriye, Îraq û kertê Xezê.**

Nawenda Xizmetên Lêkolînê ya Kongireya Amerîkayê di raporeke xwe de, ku li ser daxwaza Sinator Mark Kirêk hatiye amadekirin, eşkere dike ku, Tehran her salê, tenê Yek milyard Dolarî dide alîgirên xwe li Îraqê. Eva di demekê de ye ku, berdevkê Êstêfwan Dêmistora nûnerê taybet ê "NY" derheq bi karûbarên Sûriyê, ragehand ku alîkariyên Komara Îslamî bi Sûriyê re digihîje 6 Milyard Dolarî, wate di her mehekê de 600 heya 700 milyon Dolar.

Pêntagonê jî ragehand ku di her salekê de Komara Îslamî bi qasî 100 heya 200 hizar Dolarî alîkariyê dide Hizbullaha Lubnanê.

Herweha rojnameya Têlêgraf jî di raporekê de ragehandiye ku ji sala 2006'an pê ve heya niha, di her mehekê de Tehran 20 heya 25 milyon dolarî dide Hemasê û, ev alîkariyên darayî jî xincî çek û perwerdehiyên leşkirî û taybet ne.

## Private Government Report: Iran Spending Billions to Pay Terrorist Salaries

### Iran's defense budget ranges anywhere from $14 to $30 billion a ye




BY: Adam Kredo Follow @Kredo0
September 4, 2015 4:58 am


Hassan Rouhani / AP



Iran has been spending billions of dollars fund the salaries of terrorist fighters acro the Middle East, including in Yemen, Syri Lebanon, and the Gaza Strip, according private U.S. government analysis conduc for a leading senator, the *Washington F Beacon* has learned.

Iran's defense budget ranges anywhere from $14 to $30 billion a year, with much that money going to fund terrorist proxy groups and rebel fighters in a number of

## Di êrîşa terorîstî ya Kowêytê de, rola rejîma Îranê jî hebûye

**Çavkaniyên hiqûqî yên welatê Kowêytê ragehandin ku du dîplomatên balyozxaneya Îranê li Kowêytê tevî hesteya çekdar a "Al-Abdolî" dest hebûne, ku endamên wê hatin desteserkirin.**

Wezareta Derve ya Kowêytê di daxûyaniyekê de ragehand ku 24 kesên têkildar bi vê êrîşa terorîstî hatine binçavkirin ku yek ji wan hemwelatiyeke Îranî bi navê "Ebdulriza Dêhqanî" ye.

Dezgeha dadweriya Kowêytê kesên desteserkirî bi "sîxoriya bo Komara Îslamî û hizbullaha Lubnanê bi merema kiryarên têkderane li dijî welatê Koweytê û bazirganiya bi madeyên teqemeniyê û şandina wan madeyan bo hundurê welat, û amadekirina çek û alavên leşkirî tawanbar kir.






# Sergotar

## Kî sebebkarê awarebûna Alan e

**Kerîm Perwîzî**

Dîmenên Alan ew zarokê ku di nav kûrahiya misîbetan de jiya, û ji vê dema ku çavên xwe vekirin, nîştimana xwe fetisî di nav xwîn û agir de dît, û avabûna jiyana wî jî di peravên behrê de bû, bilez tewahiya cîhanê bi xwe ve mijûl kir, û vijdana gellek ji mirovan birîndar kir. Ew qasî ku me adet kiriye, dîmenên zarokan dilên mirovan aram dikin û keniyê dixin ser lêvên mirovan, û nîşaneya vejiyandina jiyanek nû ne, lê vê carê dîmenên Alan ku devê wî ketibû nav xîz û maseya sar ya peravên behrê, dîmenek mezin, xûya û berçav, û biêş û kovan bû ji zalbûna dêwê merg û mirinê di herêma pirr ji bela ya Rojhilata Navên de.

Di vir de mirov dikare bêje sebebkarên mirina Alan ew kes in:

Yekem: Hizrên tundrew û faşîstî yên dijî keyf û xweşiyê, ku ji radîkalîzma mesebî ve çavkanî digre, û niha di kincên DAÎŞ'ên Şî'e û Sunî de xwe derxistiye.

Duyem: Rejîma Beşar Esedê cinayetkar û cellad

Sêyem: Piştevanên Beşar Esed û berî hemiyan Xamineyî û rejîma ehrîmenî ya wî, û hikûmeta Potîn li Moskoyê

Çarem: Obama ku bi binpêkirina hêlên sor, derfetek mezin da Beşar Esed ku hovîtiyê bike.

Pêncem: Aliyên ku têhniyê xwînê ne, û ji DAÎŞ'ê piştevaniyê dikin, bi taybetî welatên cîran.

Şeşem: Hêzên ku di Kobanê û herêmên din ên Kurdistana Sûriyê de deshilatdar in, û alîkariya Beşar Esed dikin, û DAÎŞ'ê han didin.

Heftem: Hikûmetên ku wekî tacir û bazerganan petrol û serweta xelkê Rojhilata Navîn ji rejîmên diktator û zalim dikirin, û bedela pere, çek û madeyên teqînê û alavên tepeseriyê difiroşin van rejîman. Lewra ew in ku sebebkarên mana rejîmên tepeserkar di herêmê de ne.

# Peyama Deftera Siyasî ya PDKÎ bi boneya koça dawiyê ya Firêydûn Ciwanroyî




**Kurdistan Media: Bi boneya koça dawîn ya "Firêdûn Ciwanroyî"endamê Polîtburoya Partiya Demokrat a Kurdistanê û yek ji xebatkarên dêrîn ên Kurdistana Başûr, Deftera Siyasî ya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê di peyamekê de sersaxî ji Partiya Demokrat a Kurdistanê kir.**

Li peyama Deftera Siyasî de hatiye ku "Kak Firêdûn Ciwanroyî kadroyekî jêhatî û pijyayî li qada xebata rizgariya netewî de bû û jidestçûna wî xesarek mezin û cihê mixabinî û keserê ye".

Deqa peyama Deftera Siyasî bi vî awayî ye:
Hevalên hêja yên Polîtburoya Partiya Demokrat a Kurdistanê!
Silav û rêz
Nûçeya koça dawîn ya birêz Firêdûn Ciwanroyî, endamê naskirî û jêhatî yê Polîtburoya partiya we, cihê mixabinî û kesera me tev aliyan e.

Xwedêjêrazî Firêdûn, kadroyekî jêhatî û pijyayî di qada xebata rizgariya neteweya xwe de bû û li vê pêxemê de jî jiyana xwe ji dest da.

Em rêz û hurmetê ji xebat û tekoşîna wî digrin û xwe li xem û kovanên jidestçûna wî de bi şirîk û beşdar dizanin.

Bi vê boneyê ve, em sersaxiyê ji we yên birêz, serkirdayetî û hemû kadr û pêşmergeyên PDK û malbata rêzdare kak Firêdûn dikin û cihê wî beheşt be.

**Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**25'ê Tebaxa 2015'an**
**3'ê Xermanana 1394'an a Rojî**

# Kartêr: Bijardeya leşkirî li dijî rejîma Îranê piştî lihevhatina navikî bihêztir dibe




**Kurdistan Media: Eştûn Kartêr, Wezîrê Berevaniya Amerîkayê ragihandiye ku piştî rêketina navikî li gel rejîma Îranê, bijardeya leşkirî li dijî vê rejîmê bihêztir dibe.**

Li gor nûçeya malpera Kurdistan Media, Wezîrê Berevaniya Amerîkayê roja Înê, 4ê Îlona 2015an di nivîsek xwe de ku li rojnameya "U. S. Today" de weşandiye, daye zanîn ku bijardeya leşkirî li dijî rejîma Îranê piştî rêketina navikî ya bi şeş welatên cîhanê re bihêztir û bibandortir dibe.

Kartêr tekez kiriye ku bijardeya leşkirî li dijî Îranê li ser maseyê ye û ger hewce bike, dê mifah jê bê standin.

Piştî rêketina gurûpa 5+1 li gel Îranê, bernameya navikî yaw î welatî hatiye bertengkirin û li hember de jî parek ji dorpêçên aborî ên li ser Îranê tên rakirin.

Eştûn Kartêr daye zanîn ku cîbecîkirina xalên vê rêketinê dibe sedem ku hemû riyên ji bo bidestxistina çaka navikî hatine berbendkirin û bijardeya leşkirî jî rastiyek e û li pêşerojê de jî dê her wekî xwe bimîne.

Welatên deverê û bi taybetî yên erebî li kar û çalakî û destwerdanên rejîma Îranê li deverê de nîgeran in û Amerîka jî berdewam baweriyê dide wan ku ew pêşiya zêdexwaziyên Îranê digrin.

»»» Doma R: 1

giriya, axaftina xwe rawestand, û çavên kamîreyê ji ser wê diçin, lê yek ji karmendên nava televîzyonê vê vîdeoyê bi mobîla xwe digire, ku tê de diyar dibe ku çawa digirî û hêsrên xwe paqij dike.

Wallstom, yek ji wan kesan e ku piştgiriya erebên Felestînê dike, û beriya çend mehan di gotarekê de gotibû pêwîst e dewleta wan bê naskirin. Herwiha helwêsta wê li hember ereban pir baştir e ji helwesta rêjîmên welatên erebî.

Di heman bernameyê de, Wezîra Derve ya Swêd wiha got: "Welatên erebî, deriyê xwe li pêşiya koçberan girtine û televîzyonên wan taybet in bi sitran û kêv û xweşiyê. Dilê wezîrên wan wek keviran e, ji keviran jî hişiktir e."

Roja Çarşema borî termê zarokekî xeniqî li ser kenarê Bodrum hat dîtin. Wêneyê wî zarokî bilez li ser torên civakî hat belavkirin û hemû cîhan hejand.

# Perwerdeya bi zimanê dayîkê






**Îbrahîm Qasimîzad**

Behsa perwerdeya bi zimanê dayîkê di hemû welatên çend neteweyî ên cîhanê de heye, lê ya cihê basê ew e ku çawaniya serederî, û anîne berbas, û vedîtina rê ji aliyê deshilatdaran ve ye. Îran yek ji wan welatên çend neteweyî, xwediyê dewlemendiya zimanî û çandî ye, lê mixabin her ji demên berê ve hertim deshilatdaran guhê xwe nedane vê potansiyela dewlemend ya zimanî û çandî, û bi dîtingeha metirsîdarbûnê lê nihêrîne, û ew yek wekî hezkirn û hewldanek ji bo cudabûnê hesibandine.

Nêzîk bi sedsalekê berî niha demeke kêm piştî destpêkirina qonaxa meşrûtiyetê, Rezaxan zimanê Farsî kire zimanê fermî û neteweyî ê Îranê. Bi vê kiryarê zimanên din yên di vê ser'erdê de, dane aliyekî û tepeser kirin. Rezaxan ew qasê ku karî hewl da ku asîmîlekirin û jinavbirina zimanan û sembolên din ên neteweyên Îranê bike siyaseta xwe. Bi vê siyaseta wekhevsaziyê ku piştî guhertina rejîmê jî her dom hebû, li gora rapora dawiyê ya UNSCO'yê û li gora etlesa zimanên di metirsiyê de, zêdetir ji 20 ziman û zaravayên naskirî di cîhanê de, ketine ber metirsiya jinavçûnê de.

Dema ku rejîma Komara Îslamî hate ser kar, yasaya bingehîn kêmek hate guhertin, û pirsa perwerdeya zimanê dayîkê di yasaya bingehîn ya wî welatî de cih girt, lê di birêvebirina vê yasayê de heya niha ku 36 sal bi ser temenê vê rejîmê re derbaz dibin, pêgaveke micid nehatiye hilgirtin.

Esla 15 ya yasaya bingehîn ya Îranê bas ji xwendina bi zimanê dayîkê digel zimanê Farsî di xwendingehan de dike. Herwisa di benda 9 ya eslên 3, 19 û 20 ya yasaya bingehîn de, pêdagiriyê li ser wekheviya di navbera hemû hevwelatiyên Îranî di hemberî yasayê de, û nebûna ferq û cudahiyan di navbera wan de, û hebûna hemû poan û îmkanatên wekhev dike. Di vî warî de heqê perwerdeya bi zimanê dayîkê, li gora mafê hevwelatîbûnê yê desteberkirî di yasaya bingehîn de dibe.

Serbarê îşareya yasayî bi heqê xwendina bi zimanê dayîkê, lênihêrîna siyasî bi mijarên hiqûqî, zanistî û zimannasî, ku digel peydabûna diyardeya dewlet-netewe di vê nîştimanê de, ku di rasteriyeke diyarîkirî de, hate pêşxistin, zehniyetek afirandiye ku îznê nade neteweyên Îranê bibin xwediyê wan kême mafên ku di yasaya bingehîn de jî hatiye. Siyaseta rejîma Îranê jî dom û dirêjiya heman siyasetên hikûmetên pêşîn, û heya tepeserkartir û şikînertir ji siyasetên wan e jî.

Ji ber ku di piratîkê de, berevajiyê yasaya bingehîn ew hikûmet tu mafekê ji bo neteweyên din, qewm, meseb, û xeynî neteweya Fars û mesebê Şî'e bi rewa nizane, û îzna vegeşîn, pêşkevtin, û mifahwergirtina ji şiyanên xwezayî, nade wan ziman û baweriyan. Tenê carina bi awayê sînordar îzna weşanên Radyo, TV, Kovar, û bilavokên herêmî hatiye dayîn, ku ew jî bona şopandina armancên diyarîkirî ên wan bi xwe bûye.

Bi derbasbûna du salan bi ser temenê dewleta Rûhanî de, karwanê dewleta "tedbîr û omîd" (bîrkirin û hêviyê) bi hêceta cîbicîkirina sozên ku di dema piropagendeyan de dabû, çû Kurdistanê.

Di vê serdanê de, ku zêdetir digel bernameyên milîtarîzekirina sînorên Kurdistanê hevdem bû, serkomar bas ji destpêkirina perwerdeya bi ziman û wêjeya Kurdî di zanîngehên vê parêzgehê de, û dest bi karbûna beşa Kurdî ya nûçegihaniya Komara Îslamî (IRNA) kir. Lê ya ku zêdetir bû xebersaz, perwerdeya zimanê Kurdî ya dewreya yekem ya nawendî di xwendingehên Seqizê de bû, ku wekî kitêbokeke (kitabçeyeke) 68 rûpelî, di kitêba Farsî de cih girtiye. Balkêş ew e ku hêla jî ji perwerdeya bi zimanê dayîkê di astên baxçê zarokan (rewze, kudekistan) û qonaxa destpêkî, ku hewcedarê geşekirina şiyanên zarokan e, tu nûçeyek di berdest de nine.

Bi vî awayî jî, Nawenda Çandê ya zimanê Farsî, dijberiya tund ya xwe digel vî karî ragehand û ew yek wekî pilaneke biyaniyan bo lawazkirina zimanê Frasî bi nav kir. Ku ew dijberî nîşaneya geşenekirina rewşa çandî di welat de ye, û vê rastiyê eşkere dike ku ne tenê deshilatdarên rejîmê razî bi perwerdeya bi zimanê dayîkê nînin, belkû xwendina bi zimanê dayîkê di kitêbokek çend rûpelî ya li rex pirtûka Farsî de jî tab nakin.

Zimanê dayîkê yekem beş ji nasname û kesayetiya çandî ya her mirovekî ye. Ziman zerfiyet û qalibek e, ku tê de, hizr û bîr forma xwe digre, zimanê dayîkê ji mafên bingehîn ê her mirovekî ye, ji bo bidestxistina van mafan û cîbicîkirina vê bernameyê, dibe hin kiryarên siyasî bêne encamdayîn, û rewşa çandî geşe bike, û budceya çandî bihê dayîn. Sîbera siyasî û ewlehî, li ser vê pirojeyê nemîne, û îmkan ji bo vegeşîna vê pêk were. Zimanê dayîkê jî wekî zimanê fermî ê welat, ji heman destpêka nizama perwerdehiyê de, di hemû qonaxên dersî de bête hînkirin, da ku bikare wekî zimaneke zindî yê nivîskî û akademîk dirêjiyê bide jiyana xwe. Xeynî vê yekê kesên ku bas ji baştirkirina rewşa perwerdeya zimanê dayîkê dikin, dibe bizanin ku perwerdeya bi zimanê dayîkê bi vî rengî ku di bajarên Kurdistanê de dest pê kiriye, ne tenê nabe alîkar ji bo perwerdeya bi zimanê dayîkê, Belkû zimanê dayîkê ji forma xwe ya standard derdixe. Perwerdeya taybet bi herêmekê bi awayekî veqetandî û cuda ji herêmên din ên Kurdistanê, dibin sedema valahiyê di nav edebiyata Kurdî de, û edebiyata herêmekê ji herêmên din cuda dike. Bo mînak dersxwanek ji Seqizê nikare digel dîrok, edebiyat, çand, û kesayetiyên navdar, û rewşa erdnîgarî û civakî ya Mehabad yan Urmiyê bibe nasyar, û berevajî. Ew yek bi xwe derbeya herî mezin e ku li ziman û çanda neteweyekê dikeve.

# Rûhanî û rewşa mafên mirovan





**Şehab Xalidî**

Piştî vê ku alîgirên Hesen Rûhanî, piropagendeya vê yekê kirin ku Rûhanî kesekî nermrew û berevankarê mafên xelkê û kilîda çareseriya kêşeyan di Îranê de ye, û navbirî jî karî bi diruşmên bişewq û birîqedar xelkê wlat bixapîne, û posta serkomariyê bi dest ve bigre, mixabin rewşa mafên mirovan ne tenê ber bi baştirbûnê ve neçû, belkû berevajî vê yekê, zulm û zordarî, ferq û cudahîdanîn, gendelî û bi giştî binpêkirina mafên mirovan bêdadiyê dike. Li gora rapora Rêkxirawa Mafên Mirovan a Îranê, aliyê kêm 687 kes di sala 2013'an de hatin bidarvekirin, ku %68 ji wan îdaman di şeş mehên destpêka hilbijartina serkomar Rûhanî de bûn, û 411 kes di şeş mehên destpêka sala 2014'an de hatine bidarvekirin.

Di nav wan kesên ku di sala 2014'an de hatin bidarvekirin, 6 çalakên siyasî û medenî, û aliyê kêm 8 kesên temenê wan bin 18 saliyê de hene.

Di rastî de rewşa mafên mirovan di dewleta Rûhanî de bi vî awayî ye, lewra jî "Ban Ki-Moon" sekreterê giştî yê NY jî di raporeke xwe de, ku berî lihevkirina welatên 5+1 bi Îranê re bilav bibû, ragehandibû ku rejîma Îranê li ser binpêkirina mafên mirovan berdewam e, û niha dixwaze ku bi gotûbêjkirina li ser pirsa navikî, danûstandinkaran neçar bike ku bas ji mafên mirovan di Îranê de nekin, û komîsera payebilind ya mafên mirovan a NY xanima "Navanethem Pillay" jî di 3'ê Tîrmehê de daxwaz ji aliyên danûstandinkar kir ku di civînên xwe yên bi Îranê re, pirsa mafên mirovan jî bixin ber basê.

Lê mixabin ew pirsa girîng di wan civînan de nekete ber bas, û li ser pirsa navikî ya Îranê jî, lihevhatinek çêbû, û gellek ji karnasên siyasî li ser vê baweriyê ne ku lihevkirina welatên 5+1 bi Îranê re, wê zêdetir destên rejîma Îranê vekirî bihêle, bo binpêkirina zêdetir ya mafên mirovan di navxwe de, û destêwerdana di nav karûbarên welatên herêm û cîhanê de, û ewê bê tirs berdewam bin li ser girtin û îşkencekirin û îdamên bêsînor ya xelkê belengaz ê welat, û roj bi rojê zêdetir di bin perdeya ola Îslamê de, wê cînayetên hovane yên wekî îşkence û birîna destên tometbaran û derxistina çavên wan û...hwd wê bidomînin, ku di rastî de ew cezakirin pêwendiya wan bi îslamê re nine, belkû şêweyek ji faşîzma dînî ye ku ew rayedarên oportonîst bi rê ve dibin.

Ceribandina wan çend salên dawiyê di warê îdaman de, selimandiye ku rejîma Îranê bona xapandina bîr û raya giştî ji baldana bi reh û rîşeya kêşe û arîşeyên civakî, berdewam piropagendeya vê yekê dike ku ew bi îdama tawanbaran dikarin kêşeyên civakî çareser bikin, û bi tirsandina xelkê, ewê bikarin aramî û ewlehiyê vegerînin welat, lê em dibînin ne ewlehî û aramî vegeriyaye welat, û ne jî kêşeyên civakî çareser bûne. Heya di vî warî de wezîrê dozgeriyê yê kabîneya Rûhanî jî heyamekê berî niha ragehand ku rêjeya tawanan ji rêjeya nifûsa xelkê welatê me zêdetir bûye!.

Li ser bingeha van rastiyan, mirov dikare bigihîje vê encamê, ku tu serkomarek nikare di çarçoveya vê sîstema wilayeta feqîhî de, reforman bi qazancê xelkê welat bike, û weliyê feqîh û deshilatdarên derdora wî, tenê û tenê mana xwe di binpêkirina mafên mirovan û kar û kiryarên tevdanîkarane û terorîstî li derveyî sînorên xwe de dibînin, lewra ewê berdewam bin li ser van siyasetên xwe, û tenê riya pêşîgirtin ji van siyasetan yekgirtin û xebat bo herifandina text û bextê wan deshilatdarên xwînmij û gendel e, ku wê bikare dawiyê bi îşkence û îdamê, û binpêkirina mafên kêmaniyên mesebî û neteweyî bîne (Herçend Rûhanî soza çareseriya kêşeyên kêmaniyên mesebî û neteweyî da, lê kêmtirîn pêngav jî di vî warî de nehate hilgirtin).





# Doza Kurd piştî rêkevtina etomî dikare bibe mezintirîn pirsgirêka Îranê





**Çengîz Şikak**

Rêkevtina etomî di navbera Komara Îslamî a Îranê û girûpa 5+1 ji dema pi-raktîzekirinê ve, ablûqe û givaşa abûri-ya ser Tehranê hildigire û dibe sedema baştirbûna rewşa abûrî, vegerandina sedan milyar dolarî, hatina sermaye û sermayeguzariya biyanî, helgirtina qe-dexeya ser hinartin û hînana berhem û xizmetguzarî û asayîbûna têkilyên Îranê digel Rojava.

Her çend ev guhertin, piştî derbasbûna salekê bi awayekî berçav wê bihê hest-kirin, ku bi awayekî raste rast bandora wê li ser jiyan û abûriya Îranê dihê dîtin, lê xirapiya rewşa abûriya Îranê tenê ji ber ablûqeyên navdewletî niye, belkû pirsgirêka serekî di nav xwe de ye, şikista pilanên abûrî û qurixkirina kertê abûrî ji aliyê saziyên serbazî û na fermî bi sedemeke serekî ya herifîna abûrî a Îranê dihê hijmartin.

Helgirtina sizayên abûrî li ser Îranê, hevdem dibe digel vekirina destê raye-darên vî welatî ji bo pêşxistina pîlanên xwe wek destêwerdan li kar û barê navxweyî yê welatên cîran, tepeserkiri-na dengên ne razî, binpêkirina mafên mirovan û gellek kiryarên na mirovane yên din.

Ji berku rêkevtina etomî çi amajeyek bi rewşa mafê mirovan li Îranê nekiriye, tenê rêkevtineke ji bo çareserkirina pirsa etomî ya Îranê, beramber helgir-tina sizayên abûrî li ser vî welatî. Pirsa demokrasî, azadî, mafê mirovan û mafê kêm netewe û olan wek berê dimîne ku mixabin rêkevtina etomî berevajî dirûşmên welatên Rojava çi amajeyek bi wan pirsan nedaye.

Doza Kurd li Îranê, sê çar salan piştî raperîna gelê Kurd li Başûra Kurdistanê wek berê nema, û giraniya xwe ji dest da. Her ew pirsa ku caran bi mezin-tirîn pirsgrêka Îranê dihate hijmartin û herdem li serveyî bername û pilanên siyasî, emnî û serbazî yên rêveberiya vî welatî bû, ku mezintrîn şiyanên serbazî, siyasî, darayî û mirovî jê re dihate mezaxtin, niha bûye pirseka lawekî.

Mezintirîn sedema çaresernekirî-mana pirsa Kurd li Îranê, dikare paşdavekêşana partiyên kurdî li Rojhelat û deverên sînorî be, ku piştî derbasbûna çend salan bi ser vê pirsê re, dosiyeya etomiya Îranê û hewlên rejîmê bo bidestxistina çekên etomî bi ser da hat û sîbera xwe bi ser tevaya pirsên din kişand, ku yek ji wan pirsa Kurd bû.

Bo heyama pitir ji 10 salan hewldanên rejîmê ji bo destveanîna çekên etomî, ablûqe û sizayên abûrî, nakokiyên digel Rojava bi taybetî Wîlayetên Yekgirtî yên Amerîkayê, rewşa xirap a abûrî û senaryoya bi navê reformîst û pawanx-wazan mezintirîn pirsgirêkên Îranê bûn, ku ev welate li ser asta navdewletî bi van pirsan dihate naskirin, bi taybetî pirsa etomiya vî welatî.

Çareser kirina pirsa etomî hevdem e digel çûna hêzên pêşmerge bo çiya û destpêkirina qonxeka nû ya xebat û têkoşîna gelê Kurd li Rojhilata Kurd-istanê bo bidestveanîna mafên zeftkirî yên xwe, ku dikare careka din pirsa Kurd bike mezintirîn pirsgirêka vî welatî.
Bo bidestveanîna vê armancê, di pênga-va yekem da, pêwîst e ku partiyên kurdî xudan biryara siyasî ya xwe bin, û dest ji îradeya xwe bo dirêjedan bi qonaxa nû ya xebatê ber nedin, û careka din rê bi dirust bûna valahiya têkoşîn, rêxistin û peywendiya raste rast digel gelê Kurd li Rojhilata Kurdistanê nedin.

Pêngava duyem ji bo vê yekê ku careka din pirsa Kurd bibe mezintirîn pirs-grêka Îranê, bi hev re kar kirina hêzên kurdî ye, ku dikarin bi gellek awayan bi hev re kar bikin, ku yek ji wan pêkanî-na bereyeka kurdî ye.

Ev pirse ji bo PDKÎ erkekê zêdetir li ser milê wî heye: Yekem, yekgirtina herdû aliyên Demokrat e, û ya duyem jî, hewldan û destpêşxerî ji bo bi hev re komkirina tevaya hêzên kurdî û çêkirina pilatformeka hevbeş e bo rêvebirina xebata gelê Kurd li Rojhilata Kurdistanê.

Hizba demokrat li 70.min sala dest-pêkirina xebata xwe de dikare careka din wek damezirandina Komara Kurd-istanê rola dîrokî a xwe bileyîze, ku di serdema niha de, gelê Kurd li Rojhilata Kurdistanê çi hêceteke jê re qebûl nake, ku vê derfeta zêrîn ji dest bide.






# Komara Îslamî û ceribandineke şikestxwarî





**Arif vêlzî**

Her di bereberê herifîna rejîma Pehlewî de, Xumeynî û hevbîrên wî, bi mifahwergirtin ji hesta mesebî û hilgirtina diruşmên rengîn di warên aborî, civakî, siyasî, karîn hesta şoreşgêriya wî çaxî ya gelên Îranê kontrol bikin û siwarî pêlên xwenîşandanên xelkê bin, lê gellek pê neçû û piştî serkevtina şoreşê û bidestvegirtina deshilata siyasî, yek yek û deste deste çalakên siyasî ên netewên cur bi cur ên Îranê, û kesatiyên azadîxwaz û cudahizrir, her yek bi awayekî hatin wêdedan û piştguhxistin, û bi vî awayî berhema şoreşek mezin û berheq xisar kirin.

Piştî tesfiye û paksaziya cudahizran û xwe rêkxistina Xumeynî û deste û taqimên xwe, siyaseta bi kiryar ya Komara îslamî li ser bingeha dijatiya Empiryalîstan û hinartina bo derve ya şoreşê, helbet bi armanca sepandina hikûmeta şerî'eta Îslamê, wate Wilayeta Mutleqe ya Feqîh bi ser Misilmanên cîhanê de hate darêtin, û bûye stratejiya dirêjmideh a Komara Îslamî ya Îranê. Di vir de bû ku Xumeynî û hevhizrên xwe, piştevanî û xwe nêzîkkirin ji hemû tevgerên Îslamî bi giştî û li serveyî hemûyan Şî'e di herêm û cîhanê de bi hewcehiyek dîrokî zanîn û xistin qonaxa cîbicîkirinê de.

Lewra em dibînin ku di yekemîn pêgava siyaseta pawanxwazane ya Komara îslamî de, bi piştevanîkirina Şî'eyên Îraqê agirê şerê malwêranker ê 8 salî a di navbera Îran û Îraqê de geş bû, û xisarek zêde a canî û madî gehand xelkê Îranê, her eva jî bûye despêkek ku hêdî hêdî li jêr navê avakirina nawendên curbicur ên olî, candî û aborî û ji rêya Spaha Pasdaran û liqên wê ve, di herêmê de nifûz û bandora xwe zêde bike, lewra niha jî em dibînin ku taya Quds a Spaha Pasdaran, bi mezaxtina xeyalî a sermayeya welatê Îranê, di piraniya welatên weke Îraq, Yemen, Sûriye, Lubnan, Lîbî, Felestîn, Efxanistan û... hwd de, girûpên terorîstî çi Şî'e û çi jî Sune perwerde dike, û bi vî awayî em dibînin ku hekî nebêjin bi tewahî, lê dikarin bêjin ku kêm û zor, dest di piraniya aloziyên îro ên herêmê de hene.

Niha jî piştî nêzik bi çar dehikan deshilatdariyên, raste ku bi mifahwergirtina ji hesta mesebî û dahata bê sînor a petrol û gaza Îranê, Komara Îslamî kariye ku dest bixe nava karûbarên piraniya welatên herêmê de û, şer û pevçûnan çê bike, bo mînak bi piştevanîkirina girûpên terorîstî ên weke Hemas û Cîhada Îslamî û Bereya xelkî ya Azadiya Felestînê, heya niha asteng bûye li ser rêya derketina şatîtîyê di navbera Îsraîl û Felestînê de.

Yan jî bi piştevanîkirina Hizbullah a Lubnanê û Taliban li Efxanistanê û Hizbullah û Esaîbên Ehlê Heq û DAÎŞ li Îraqê û Hûsiyan li Yemenê û dest û peywendiyên Beşar Esed û binajoxwazên Lîbiyê û ...hwd, kariye ku aramî û ewlehiya herêmê têk bide û bibe hokar û hevkarê serhildana şerê taîfî û mesebî, ku heya niha xwîna bi sedan hizar jin û zarok û xelkê bêtawan tê de hatine rêjandin.

Lê niha pirsyarek derdikeve holê ku ev jî ev e ku, gelo Komara Îslamî di siyaseta şandina şoreşê de serkevtî bûye? Bêguman ne, jiber ku em dibînin ku aliyê kêm, beşeke berçav ji xelkê Felestînê vê rastiyê dizanin ku, piştevaniyên Komara Îslamî ji wan, tenê di çarçoveya diruşman de man û zêdetir weke kartek zext û guşarê li dijî Îsraîlê, û bi gotina wan Sehyonîzm û Empiryalîzmê bi kar anîne.

Yan jî li Yemenê û bi pêkanîna hevalbendiya Erebî bi serperestiya Erebistana Si'ûdiyê, wisa tê xuyakirin ku careke din Sen'aya paytext carek din kontrol dikin, û Yemen ji dest û peywendiyên Komara Îslamî tê paksazîkirin. Cuda ji taqimek xulamok nebe, tenanet Şî'eyên Îraqê jî li dijî siyasetên Komara Îslamî li hemberî welatê xwe, rijiyane ser kolanan û daxwaza kurtkirina destên Îranê ji welatê xwe dikin. Li Sûriyê jî em dibînin ku opozisyon niha êdî gihîştiye bin guhê Demişqa paytext, û deshilata Beşar Esed, ku hevpeymanê stratejîk a Komara îslamî ye di herêmê de, roj bi roj ji jinavçûn û nemanê nêzîktir dibe.

Bi giştî û di dawiyê de em dikarin bigihîjine vê encamê ku Komara Îslamî piştî 37 sal deshilatdariya bê sînor bi ser axa Îranê de, serbarê bikaranîna dahata neft û gaz çavkaniyên ser erd, û bin erd ên Îranê, bona piştevanîkirina deste û taqim û bigişî hizra binajoxwazî û têkderaneya li Rojhilata Navîn û bi merema hinardekirina şoreşê, em dibînin ku ne tenê serkevtî nebûye, belkû ji aliyekê bi sedema xisarkirina rêjeyek zaf û mezin ya dahata Îranê, aboriya welat wisa felec kiriye, ku îro em dibînin ku birsîtî û bêkariyê dest avêtiye gevriya xelkê Îranê û, ji aliyekî din ve siyaseta hinardekirina şoreşê encamek beravajî hebûye û, rûçike gellek kirêt û nebaş ji Komara Îslamî nîşana welatên herêm û cîhanê bi giştî daye, û her ava jî bûye sedem ku êdî Komara Îslamî cihê baweriya tu kes û alî û welatekî nebe û, tenanet amade nebin ku bi tu awayekî di tu waran de alîkariya Komara Îslamî bikin û yan jî di eniyekê de û bi hev re kar bikin.

# Nerîna Lîderan



**Obama: "Em dizanin ku Îran li pey karên têkderane di herêmê de digere".**



**John Kerry: "Wêneyê Alan gellekî bi bandor bû".**



**Angela Merkel: "Pêwîst e Almanî bi nermî serederiyê ligel wê kirîza demdirêj bikin".**



**Robert Ford: "Bila Kurd di Rojavaya Kurdistanê de bibin xwedî statû".**

## John Kerry got ku wêneyê Alan gellekî bi bandor bûye



**Wezîrê Derve yê Amerikayê John Kerry, ji bo Alan Kurdî ku di deryayê de li ser rêya Ewropayê xeniqîbû got, di temenê Alan de neviyekê min heye.**

Wezîrê Derve yê Amerikayê John Kerry ji rojnamevanan re ragihand, Neteweyên Yekbûyî, krîza koçberên Sûriyeyê ya niha wekî krîza herî mezin a 25 salên vê dawiyê nirxandiye û welatî wan amadeye di vê mijara de zêdetir rolê werbigire.

John Kerry diyar kir, Amerîkayê heta niha ji bo penaberên Sûriyeyê buhayê 4 milyar dolarî alîkariyên mirovahî kiriye.

Kerry amaje kir ku rewşa koçberên Sûriyê yên ji ber şerî li dewletên ciran bicih bûyîn gelekî xirabe.

Herwiha Keryy da zanîn ew dê zêdetir alîkariya bidin û wiha got: "Ez bawer nakim ew (penaber) bi awayakî mayînde werin qebûlkirin. Li li Lubnanê û Urdinê kampên me yên mezin ji bo penaberan heye. Herwiha li Tirkiyeyê jî hene. Ji bo çareserkirina pirsgirêka penaberan dibe ku em hinek din kamapan ava bikin."

John Kerry beriya niha gotibû, Amerîka di îsal de hezar û 500 koçberên Sûriyeyê û di sala bê de jî 8 hezar penaberên sûrî werbigirin.

## Xamineyî: Hewce dike ku sansora li ser medyayan tundtir be

**Kurdistan Media: Elî Xamineyî, rêberê rejîma Îranê li biryarekê de bi serkomar û berpirsiyarên rejîma Îranê ragihandiye ku dibe sansora zêdetir bikeve ser ragihandinan.**

Li gor rapora malpera Kurdistan Media, rêberê rejîma Îranê li civînbekê de ragihandiye ku: "Dibe pêşiya berhemên ferhengî weke teyatro û nivîsên ku bi bingehên welateya Feqîh re nateba ne, were girtin".

Navhatî li beşek din ji axaftinên xwe de bi eşkere li gel azadiya ferhengî û bîr û baweriyê de dijberiya xwe nîşan daye û ragihandiye ku dibe çand li ser bingeh û durûşmên Xumênî û Înqilaba Îslamî birêve biçe.

Xamineyî herweha daye zanîn ku pirsa aborî nabe sedema aloziya fikr û pirsek neewqas girîng e, lê pirsgirêka ferhengî, xewê ji çawan diherimîne.

Wî li beşek din de berpirsên hikûmetî jib o aboriya "Miqawimetî"han dane û li doma gotinên xwe de basa wê kiriye ku her bernamyek ku bi siyaseta aboriya welat "Êqtisadê Muqawimetî" re hevterîb nebe, nabe ji aliyê berpirsan re kar jêre bê kirin.

Ev gotinên Xamineyî ku rû ji Hesen Rohanî bûn, li demekê de ye ku Hesen rohanî li dema piropagandayên hilbijartinê de bas ji vekirîtirkirina seqaya siyasî ya welat dikir û soza baştirkirina rewşa medya û ragihandinan û gelek warên din dabû.

Baskirina ji sansorê li Îranê de ji aliyê rêberê rejîma Îranê li demekê de ye ku li gor rapora Komîteya berevanîkar ji rojnamevanan di Niyoyorkê de, rejîma Îranê li dewrana serkomariya Hesen Rohanî de bi bi 7'mîn welatê cîhanê li warê sansor de daye zanîn ku eva jî gefek micid e li ser çapemenî û ragihandinên wî welatî.



## Rêjeya bêkariyê di Îranê de zêde dibe



**Kurdistan Media: Meclîsa rejîma Îranê li raporekê de bilav kiriye ku li baştirîn haleta geşeya aborî heta 5 salên din de, rêjeya bêkariyê ji 4 milyon kesî derbas dibe û eva weke kirîzek mezin jib o desthilatdarên rejîmê daye zanîn.**

Li gor nûçeya malpera Kurdistan Media, rêjeya bêkariyê li welatê Îranê di heyama 5 salên pêşerojê de, ji sedî şazde derbas dibe û eva jî li halekê de ye ku berpirsên rejîma Îranê bas ji rexsandina derfetên karî jib o xelkê wî welatî dikin.

Ev rapora meclîsa rejîmê bas ji betalî û bêkariya nizîk bi 6 milyon xwendewaran dike ku li midehê 8 salên derbasbûyî de bi rêjeya betalên wî welatî zêde bûne û eva jî li halekê de ye ku pêkanîna derfetên karî jib o ciwanên wî welatî li midehê salên 1385 heta 1393an de berdewam li hale jordeçûnê bûye.

Berpirsên rejîmê ev rêjeya bêkariyê bi gef û metirsiyek mezin bo ser desthilatê didin hesibandin.

Ev berpirsê rejîmê îtiraf dike ku Hesen Rohanî nikare kirîza bêkariyê li welat de çareser bike û nikare pêşiya jordeçûna bêkariyê jî bigre, ji ber ku rêjeya han her ji niha ve hewcehî bi geşeya aborî ya %10 heye, bi watayekî din 35 mîlyard dolar sermayeguzarî hewce ye.






Amîne Qadirî:

# "Ew roj tu caran ji bîra min naçin ku RDKÎ nûçeya şehîdketina pêşmergên partiya me belav dikir. Em pir aciz dibûn, jiber ku bi şehîdbûna her pêşmergeyekî, me hevalekî xwe yê dilsoz ji dest dida".

**A: Jîla Moste'icir**

Ji aliyekî ve eşq û evîna pişikdariya di şoreşa rizgarîxwaziya gelê Kurd de, mijarek e ku bi dirêjahiya dîroka şoreş û berxwedana Kurdan li her çar parên Kurdistanê, rengvedan û cihekî taybet bi xwe heye û mirovê Kurd tu carî nikare bandora jinan di vê rêya pîroz de kêm binirxîne. Ji aliyê din ve mezinahî û rastbêjî û rengvedana siyasetên rast û paqij ên PDKÎ di nava her çar parên Kurdistanê de jî mijarek e, ku ji her Kurdekî nîştimanperwer re rohn û eşkere ye.

Her ev eşq û evîna serbestî û rizgarîxwaziya netewî û, dîroka pirr ji serweriya PDKÎ ye ku bûye sedema vê yekê ku malbateke şoreşvan ku xelkê Sengeser a ser bi Kurdistana Başûr in û xwediyê 5 keçên welatparêz in, serbarê hebûna hejmareke berçav ji partiyên Başûrî, ji PDKÎ hez dikin û bi awayekî têkilî siyaset û xebata PDKÎ dibin ku, her 5 keçên malbatê, jiyana hevpar tevî kadir û pêşmergên PDKÎ ava dikin, û bi salan e di refên PDKÎ de xebata siyasî û medenî dimeşînin.

Amîne Qadirî xûşka herî mezin a wan 5 keçan e ku bi serbilindî û şanazî ve jiyana di nava PDKÎ hilbijartî ye, û endameke mandînenas a partiya xwe wate PDKÎ ye.

Amîne Qadirî keça Qadir sala 1963'an (1342) li bajaroka Sengeser a ser bi Başûra Kurdistanê hatiye dinê.

Amîne Qadirî nasyariya xwe tevî PDKÎ û herweha pêkanîna jiyana xwe ya hevpar weha ji Agiriyê re bas dike: "Nasiyariya min tevî PDKÎ vedigere bo wan salan ku Partiya Demokrat çeperên xwe yên berxwedanê veguhaztibûn nava axa Başûra Kurdistanê de. Wî çaxî em tevî siyasetên Partiya Demokrat nasyar derketin û me hewla vê yekê da ku me peyvendiyeke herî bihêz tevî vê partiyê hebe, bi awayekî ku êdî mala me weke binkeyek Partiya Demokrat lê hatibû. Her ev têkiliyên me bi PDKÎ re jî, bûye sedem ku min tevî pêşmergeyekî kevnar ê Partiya Demokrat bi navê Ehmed Bîlal jiyana hevpar ava kir û, berhema jiyana me jî sê keç in bi navên Bêxal û Şoxan û Geşbîn".

Amîne Qadirî weke Başûriyek ku tewahiya jiyana xwe di pêxema xizmeta bi PDKÎ de derbaz kiriye, çavnihêriya xwe ji Partiya Demokrat û hevjînê xwe weha tîne ziman: "Dema mirov bona gehiştin bi armancên xwe rêyekê digire pêşiya xwe, tevî gellek astengî û zehmetî û taliyên jiyanê berbirû dibe. Min jî bona gehiştin bi armancên xwe, mil bi milê PDKÎ û weke her mirovek din ku karê siyasî dike, li gora şiyana xwe, hewla meşandina û pişikdariya karê siyasî û karûbarên PDKÎ daye, û wê her berdewam jî bimînim, lewra çavnihêriya min ji partiya min û hevjînê min ev e ku, heya gehiştin bi armancên şehîdan ji xebat û berxwedanê ne sekinin".



Amîne Qadirî roja herî xweş a jiyana xwe weha tîne ziman û dibêje : "Roja herî xweş a jiyana min vedigere bo sala 1987'an (1366). Di wê salê de bû ku min bo cara yekemîn rêberê navdar ê gelê xwe şehîd Dr. Qasimlo ji nêzîk ve dît, û dilê min bi dîtina wî geş bû. Ew roj ji min re bi qasekê xweş bû ku heya roja mirinê tu carî ji bîr nakim".

Amîne Qadirî herweha roja herî nexweş a jiyana pêşmergatiya xwe weha tîne ziman: "Rojên herî nexweş ên jiyana min, zaf in. Ew roj tu caran ji bîra min naçin ku RDKÎ nûçeya şehîdketina pêşmergên partiyê belav dikir. Em pir aciz dibûn, jiber ku bi şehîdbûna her pêşmergeyekê, me hevalek xwe yê dilsoz ji dest dida".

Amîne Qadirî di dawiyê de rû li xelkê Kurdistanê û bitaybetî keç, jin û dayîkan dike û bi vê gotinê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tevî rojnameya Agiriyê tîne: "Peyama min bo keç û dayîkên Kurdistanê ev e ku, bi her awayekî ku dikarin, alîkar û piştevanê vê xebata rewa ya PDKÎ bin. Jiber ku heyama 70 salan e ku Partiya Demokrat bona dabînkirina ewlehî û jiyanek aram bo xelkê Kurdistanê xebatê dike û qurbaniyan dide".



## Bêkarî û pîşeyên derewîn, rastiya civaka Îranê





**Şemal Terxîbî**

Hevdem digel wajûkirina lihevkirina Viyenê, hejmarek ji xelkê Îranê rijiyane ser kolanan, û cejna bi nav serkevtina xwe bi rê ve birin, û beşeke zaf ji vê xweşiyê ku li ser kolanên bajarên mezin de hate dîtin, vedigere bo vê hêvîdariya bi nemana vê rewşa xirap ya aborî, ku di heyama aliyê kêm dehika borî de bi ser wan de hatibû sepandin. Wate xelk bi vê hêviyê ku bi wajûkirina lihevkirinê wê dorpêç bêne rakirin, û rewşa aboriya xelk û welat, ber bi baştirbûnê ve here, dest kirin bi kêfxweşîkirinê.

Bêxebere ji vê ku beşeke berçav ji daketina aboriyê, ji sîstema birêveberî û îcrayî ve çavkanî digre, û bandora gemaroyên aborî tenê aliyekî pirsê ye, ku bi avirdaneke bilez bi ser rewşa Îranê, ew rastî zêdetir ji me re eşkere dibe. Bi armanca gihîştina bi encameke eqilanî, du diyardeyên pêwendîdar bi rewşa aborî ya welat emê raxin berçavan.

Elî Şemserdekanî avakerê herêma azad ya Qişmê, di gotûbêjekê de digel rojnameya Şerq dibêje: "Her herêmeke Îranê, paşayekî qaçaxçî heye, û salê nêzîk bi 35 milyard dolar sotemenî û kelûpel tê qaçaxkirin". Di domê de bas ji vê dike ku ew pirose bi awayekî sîstematîk û bi saporta binyatên hikûmetî tê encam dayîn, ku ew jî mînaka gendeliya rasteqîne ya bêdeng a aborî ye di welat de.

Ji aliyekî din ve bi sedema nebûna pilanan di warê xizmetguzariyên wekî xanî û tendurustî û kar, û palpiştînekirina ji cotkaran û pezdaran, û baxevanan û hewlnedan bo başkirina rewşa jiyana akinciyên gundan, şîpelên koçkirina gundakinciyan ber bi bajaran zêdetir û bileztir bûye, ku piraniya wan bi neçarî li qeraxa bajaran de akincî dibin.

Li gora dawî serjimêriyan jî akinciyên wan herêman zêdetir ji hemû xelkê din, metirsî û egera tûşbûna wan bi xisarên civakî wekî îtiyad (bengdarî), leşfiroşî, nexweşiyên pêstî û ifonî, û îdzê, heye. Wezîrê Bajarsaziya rejîmê di vê derheqê de dibêje: "Ji koma nifûsa 55 milyonî ya bajarên Îranê, zêdetir ji 18 milyon kes - 1 li ser 3 ji nifûsa bajarakincî ya Îranê- di herêmên metirsîdar ên qerax bajaran de dijîn.

Hekî ji vê biyavê ve, em çav li pirsa pîşeyên derewîn ên nav bazarên Îranê de bikin, em dibînin ku beşa herî zêde ya wan kesên ku rû li jiyana bajarnişniyê dikin, neçar dibin ku bo bijêva jiyana xwe, xwe bixin jêr zexta van karan de, ku li gora gotina Elî Rebî'î Wezîrê Kar ê rejîmê, 7 milyon kes wate %30 ji nifûsa 23 milyon kesî ya bi nav xwedî kar di Îranê de, mijûlî wan şêwe karên aborî ne, ku tu bandora wê li ser baştirkirina rewşa aborî ya welat nine, û berevajî bandora wan ya neyînî heye. Pîşeyên wekî hawarker (dadzen, داد زن), alîkarê hawarker (کمک داد زن), nobetgir (nobetgîr,نوبت گیر ), girîker (kesê ku digrî, گریه کن ), hêlragirê taksî (kesê ku taksiyê disekinîne, خط نگه دار تاکسی ) , xwedîkerê nesaxan ( همراه بیمار), û dellalî, firoşyarê nav metroyê, û bilavkerê kart ( کارت پخش کن) û...hwd.

Yek ji sedemên bilavbûna bilez ya wan çalakiyên aborî ku zêdetir ji %20 ji bazara Îranê dagîr kiriye, pêk hatiye ji lawaziya bazarên fermî ên kar, û bi gotineke din bêhêziya hikûmetê derheq dîtina karê nû bo xelkê Îran, ku bûye sedema vê ku bazareke hevterîb digel bazara fermî ya kar hebe, ku bi pîşeyên bin'erd yan pîşeyên derewîn di Îranê de têne nasîn, ku hin caran li çav karê fermî aliyê akêm 10 qat zêdetir e.

Eşkere ye ku sedema yekem ya vê rewşê hema pirsa bêkariyê ye ku yek ji encamên rewşa aboriya lawaz e. Di vî warî de Wezîrê Kar ê rejîmê 25'ê meha Tebaxê bi nûçegehaniya Mêhr ragehnad:

"Dewlet nikare heya li dûredîmena sala bihê de jî, kêşeya bêkariyê bi taybetî ya ciwanên xwendewar çareser bike, û tenê bona pêşîgirtin ji zêdebûna nirxa bêkariyê, aboriya Îranê hewcehî bi vegeşîna serveyî %8 heye, wate hewcehiya wê bi zêdetir ji 350 milyard dolar sermayedanîna nû tenê li kertê neft û gaz û petroşîmiyê de heye.

Eva di demekê de ye ku nirxa vegeşîna aboriya Îranê, li gora serjimêriyên nawenda amar di salên (2012,2013 û2014) 1391 û 92 û 93'an de, di bin sifrê de bûye.

Her di vî warî de nawenda lêkolînên rejîmê di raporekê de eşkere kiriye ku di sala 1400 wate di baştirîn awayê xwe de, wate nirxa vegeşîna %5, wê rêjeya bêkarên welat bigihîje 4 milyon û 100 hezar kesî, û nirxa bêkariyê bo %16 wê bilind bibe.

Li gora dawî lêkolînan hekî hikûmeta Îranê bixwaze, armancên bernameya şeşem ya vegeşînê bipêke, pêwîst e ku di salê de aliyê kêm 900 hezar karên nû berhev bike, ku eva di demekê de ye ku tê çaverêkirin ku heya heyameke din 4 milyon û 500 hezar derçûyiyên zankoyê, yên daxwazkarê kar tevlî nifûsa bêkar ya welat bin, ku di rewşa herî baş de, neçar in ku rû li pîşeyên derewîn bikin.

Eşkere ye ku çavkaniya sereke ya dahat Îranê, ji neft û pîşeyên pêwendîdar ve bi dest tê, ku hemû jî di bin deshilata seranên hikûmetê ye, ku dabeşkirina van çavkaniyan jî, wate dahat û heyiyan, û hêz û deshilat, û zanist û zanyariyên pêwendîdar jî di çarçoveya deshilata deshilatdaran de ye, û xelk ji pirsa dabeşkirina hêza siyaî û aborî de tu roleke wan nîne, ku ew yek bûye sedema vê ku valahiya çînatî (tebeqaî) ya Îranê zêdetir be, û diyardeyên wekî pîşeyên derew bibin diyardeyên selimandî, û haşahilnegir, ku di nav xwe de, dehan kêşyên civakî û ji rê derketinên civakî veşartine.






# Pirtûka Mehmet Oncu ya "101 Biwêj 101 Çîrok" derket




**Pirtûka nivîskar û lêkolînerê kurd "Mehmet Oncu" derket.**

Nivîskarê kurd Mehmet Oncu ji Rûdawê re diyar kir ku pirtûka wî ya bi navê "101 Biwêj 101 Çîrok" ji aliyê Weşanên Avesta'yê ve derket.

Mehmet Oncu da zanîn ku ew xebata wî ji 101 biwêj û çîrokan pêk tê, û wiha got:

"Ew xebat keda 30 salî ye. Ez gellekî li deverên Kurdistanê geriyabûm û min ev berhem û çend berhemên din bi deng û notgirtinê tomar kiribûn."

Nivîskarê berhemê Mehmet Oncu li gellek deverên Kurdistanê geriyaye, û ev gotin ji zarê kal û pîrên kurdan berhev kirine.

# Ferhenga Kurdistanîka bilav bû



**Li Rojhilata Kurdistanê, ferhengek bi sê zimanên kurdî, farsî û înglîzî hat çapkirin.**

Ferhenga bi navê "Kurdistanîka", ku bi sê zimanên kurdî, farsî û înglîzî hatibû amadekirin, hate çapkirin.

Ferhenga han ji aliyê nivîskarê kurd Elî Coşenî ve û di heyama 15 salan de hatiye amadekirin, û weşanxaneya "Mang" jî çap kiriye.

Tevahiya karên dîzayn, sererastkirin (edit) û taypkirina Kurdistanîkayê ji aliyê Coşenî ve hatiye kirin.

**Rûdaw**

# Biryara konserta Kamkaran di Mehabadê de hate hilweşandin

**Kurdistan Media: Ji ber bernameyên naskirî bi "Hefteya Dewletê" bernameya konserta Kamkaran ku qirar bû li bajarê Mehabadê de bi rê ve biçe, qerar ji aliiyê rejîmê ve hate betalkirin.**

Li gor nûçeya malpera Kurdistan Media, konserta girûpa Kamkar ku qirar bû li bajarê Mehabadê de bi rê ve biçe, bi hinceta Hefteya Dewletê ji aliyê berpirsên rejîmê ve hate hilweşandin.

Erdeşîr Kamkar di vê derheqê de ragihand:

"Berpirsên rejîmê bi me ragihandin ku we ruxset ji bo hola 500 kesî wergirtiye, lê ew hola ku qirar e konserta we tê de bi rê ve biçe, cihê 580 kesan e û dibe



ku hûn ruxsetê ji bo 80 kesên din jî bistînin".

Betalkirina qerara vê konsertê di demekê de ye ku girûpa mozîkê ya Kamkaran li sê bajarên Kurdistana Rojhilat de bername hebûne.

Konserta girûpa mozîkê ya "Erdeşîr Kamkar" bi stranbêjî û jenyariya hunermendan: Erdeşîr Kamkar, Wehîd Tac, Hişmet Recebzade, Siyawuş Kamkar, Nêyrîz Kamkar, Kambîz Genceyî, Nîgar Xarken, Sîrwan Menhûbî, Tergul Xelîqî, Kamran Ehmedî û Qasim Rehîmzade bi rê ve dice.

# Gotinên Navdaran



A: Firat Ceweri

Tu tişt weke xeyalên mirovan azad tune ye.

**David Hume**

Jiyan bi hinan şêrîn, bi hinan jî tehl e.

**Turgenyev**

Mêr jiyanê pir zû, jin jî pir dereng nas dikin.

**Oscar Wilde**

Tu tişt mîna jiyanê ne bi qîmet e.

**Euripides**

Ji jiyanê metirsin zarokno! Gava hûn tiştekî baş û rast dikin, jiyan çiqas xweş e!

**Dostoyevskî**

Di jiyanê de hertim xweşî û nexweşî têkel e.

**Ludwig Tieck**

Jiyan hunereke zehmet e.

**Brachvogel**

Qîmeta jiyanê ne pir jiyîn e, baş jiyîn e.

**Montaigne**

# Zimanê Kurdî


Hewa sayî ye.


Berf dibare.


Hewa ewrî ye.


Bager çê dibe.


Hewa şilî ye.


Bahoz radibe.



BARAN

**Ewrek hate asmanî**
**Baranek gel xwe anî**
**Rijande serê çiya**
**Şîn kir gul û giya**
**Tev newal û der û deşt**
**Xemilandin mîna biheşt**
**De ka rabin cotyaran**
**Bikêlin tev beyaran**
**Tu lez ke û bilezîne**
**Warê xwe bixemlîne**
**Baranê lê ke, lê ke**
**Xetîra jînê pê ke**

**Azad Mizûrî**

## Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

1- Tiştîkê min tîştok e, yê bi kolav û dersok e, navê wê zirçepok e. (* Bo pîvokê jî bikar hatiye ) .

- Xalê min Emer e, sê kurtekên di-bere, du sipî ne êkê zer e.
- Hate meydanê Inter, 3 kortekên diber, 2 sipî ne, êkê zer.

- 2 avêt di tirarekî da, na çine navik.
- Qesra sipî bê derî.
- Xanî yê bê derî.
- Quba bê kutek.
- Lawê zerê di qesra sipî da.
- Min tiştekî dîtî, du reng av di navde dişimitî.

- Xaniyekî gilovir/girovir û sipî, bê pencer, roj û derî, tê de rûniştiye bûkek e zerî.
- Çume ser banekî, berê xwe dideme ber banekî, 2 avêt di amanekî.

- Emer e Emer e, sê pêstê sipî yê li bere , êkê zer e.
- Hate mala me Enter, du kurtekên li ber, êk sipiye êk zer.
- Mamê min Heyder e, sê qutkên li bere, du sipî ne êkê zer e.

- Metelok û metelok, qûna te dikim mencelok, avkên bana, şilqa li xwe didet, yê dibeme Duhok.
- Rûto ji pûrto di bit, pûrto ji rûto dibit

**Bersiv: Hêk**

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



